

# Rasan û Pêşmerge

»»» R:2






*Bidestveanîna mafên netewî yên gelê kurd di çarçoveya Îraneke demokratîk û federal de*

# Agirî

*Duheftînameyek Siayasî-Giştî Ye, PDK Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî*
*www.agirimedia.org Hejmar (319) 04-02-2018 Buha (1000) Tûmen*

## Dr. Mîro Eliyar:

**Dîrokê ew şanazî bexşî PDKÎ ku Komara Kurdistanê wekî yekem deshilata neteweyî ya modern ya Kurd ava bike**

»»» R:4

## 2`ê Rêbendanê remza vejînê



**Yad û bîra Komara Kurdistanê ji aliyê dirêjîderên riya Pêşewa Qazî Mihemed ve bilind hate nirxandin**

Cejna 2`ê Rêbendanê, 72.emîn salroja avakirina Komara Kurdistanê li Kurdistana Rojhilat di binkeya Deftera Siyasî a PDKÎ de, hate lidarxisitin.

Roja Yekşemî 1`ê Rêbendana 1396`an, ji bo rêzgiritin ji 72.emîn salroja avakirina "Komara Kurdistanê", ji aliyê Pêşewayê mezin û hevalên wî ve, rêûresmek bi beşdariya endamên rêberî, Kadr, Pêşmerge û malbatênPDKÎ, hate lidarxistin.

Ew rêûresma bi sirûda neteweyî a "Ey Reqîb" û ragirtigtina deqeyek bêdengî ji bo rêzgiritin ji riha paqij a şehîdên riya azadiya Kurdistanê dest pê kir.

Piştre di beşa yekem a vê rêûresmê de, Dr. Mîro Eliyar endamê Deftera Siyasî a PDKÎ, bi boneya yad û bîranîna 72.emîn salroja avakirina Komara kurdistanê, çend gotin pêşkêşî beşdarbûyiyan kir.

Eliyar di gotinên xwe de bas ji vê yekê kir ku: "Dîrokê ev şanziya ji PDKÎ re bexşiye, ku Komara Kurdistanê, yekem desthilata pêşkevtî a modern a Kurd avak bike, û rêberê nemir "Qazî Mihemed" weke serok û pêşewayê wê komarê diyarî bike".

Dr. Mîro Eliyar herwiha di axavtinên xwe de bas ji vê kir ku: "Di heyamekê de ku rejîm rewayiya wê nemaye, û valahiyeke mezin ketiye nav refên wê de, û xelk heta astekê bi hev re yekgirtî ye. Serhildana vê carê berevajiyê tevgera "Kesk", tenê di bajarê Tehranê û çend cihên din de sînordar nemaye, û xelkê welat hemû bi hev re di wan nerazîbûnên li dijî rejîmê de beşadar in".

Piştre, peyama Saziya Yekîtiya Jinan, Ciwanan, û Xwedekarên PDKÎ, ji aliyê "Şine Drûdger", cihgira sekretera Yekîtiya Jinan a PDKÎ ve hate xwandin.

Herwih merasim bi çend stran, helbest, û sirûdên şoreşgerî,û dîlana reşbelek a Kurdî berdewam kir, û piştre jî bi govenda giştî dawî pê hat.

Herwisa cejna 2`ê Rêbendanê di Navenda 3 ya Kurdistanê de jî bi rê ve çû. Ew Rêûresm jî bi sirûda neteweyî a "Ey Reqîb" û deqeyek bêdengî, ji bo rêzgirtin ji riha paqij a şehîdan û bi taybet şehîdên "Rasanê" dest pê kir. Piştre Sidîq Derwîşî berpirsê Navenda 3 ya Kurdistanê bi boneya roja 2`ê Rêbendanê, peyamek pêşkêşî amadebûyiyên vê rêûresmê kir.

Di beşeke din a wê rêûresmê de, helbestvan mamasota "Bêbeş", helbestek pêşkêş kir.

Ji aliyekî din a wê rêûresmê de, peyama Yekîtiya Ciwanan û Jinên Demokrat a Kurdistana Îranê, ji aliyê "Şaho Ehmedî" ve hate xwendin. Piştre sirûda bi navê "Hat 2`ê Rêbendanê", ji aliyê "Osman Rehmanî" û "Siyamend Şabûyî" ve hat pêşkêşkirin.

Herwiha di beşeke din a wê rêûresmê de, zarokên Navenda 3 ya

»»» R:6

## Sekretariyeta Hizba Demokrat a Kurdistana Îranê agehdariyek belav kir.

**Kurdistanmedia: Sekretariyeta PDK Îranê li dor cehdeke çewaşekarane û xirabkarane, agehdariyek weşand.**

Deqa agehdariyê bi vî awayî ye:

Agehdariyek ji bo raya giştî
Çend rojan berî niha li rêbenda (seytereya) Dêgele ya li ser riya di navbera Koye-Hewlêrê de, di navbera hejmarek ji xelkê asayî û hêza Asayîşê ya parêzerê wê rêbend (bazgeh)ê , aloziyek çêbibû, lê hin kes û ragihandin hewil didin ku bi armancek siyasî ya diyarîkirî, Hizba Demokrat jî tevlî wê aloziyê bikin, û bi alîgir nîşan bidin, bona vê ku pirsgirêk û dijberiyên di navbera Kurdên parçeyan de zêdetir bikin, û pîlana dujminên Kurd, bizanebûn yan jî nezanebûn cîbecî bikin.

Eva di halekê de ye ku li ser pirsên netewî ên Kurdistanê û berevanîkirin ji mafên rewa û xwastên rizgarîxwazane ên Kurdan li hemû parçeyan de, ger Hizba Demokrat yekem partî nebe, bêguman ji partiyên din jî dûre nemaye; û li vê derheqê de hewcehî bi tu mînakan jî nake, ji berku dîroka xebat û tekoşîna Hizba Demokrat, gelek ji wê paqijtir û zelaltir e ku dujminên Kurd bixwazin vê rastiyê bi berxwar û çewaşekirinê ve, nîşanî xelkê mafxwaz ên Kurd bidin.

Lewre em wek Hizba Demokrat a Kurdistana Îranê, her cure têkilyekê bi wê bûyerê ve ret dikin û radigehînin ku, Hizba Demokrat a Kurdistana Îranê tu beşdariyek alîgirane bi qazanca tu aliyeke vê bûyera nexweş û nexwastî nebûye û hewl û nûçeyên weha jî bi armanca gumanxistina ser tekoşîna Kurdan li Rojhilata Kurdistanê de, di qazanc û berjewendiya dujminê sereke yê Kurdan, anku Komara Îslamî ya Îranê de dibînin.

Siyaseta Hizba Demokrat heya niha jî piştevanîkirin ji xebata Kurdan di hemû parçeyên Kurdistanê de bûye û dê herwusa jî bimîne; herweha di pirsgirêk û aloziyên navbera part û aliyên Kurdistanî de jî, çiqas ji dest hatibe, gotina xêrê, aştî û biratiyê kiriye, nexa xwe nekiriye aliyê van nakokî û pirsgirêkan.

Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê
Sekretariya
4`ê Şibata 2018`an
15`ê Rêbendana 1396`an

## Sergotar

# Rasan û Pêşmerge

N: Kerîm Perwîzî

Xebata netweya Kurd ji bo gihîştina bi rizgarî û azadiyê, ezmûneke zaf digel rejîmên yek li dû yekê hebûye, û di van ezmûnan de, hinek bi serkevtin û hinek ji wan jî, bi tama tall ya derbexwarinê, ders wergirtine. Lê bi hemû evraz û nişîvên xwe ve, berdewam û bêrawestiyan karwana xebat û şoreşê di rê de ye, û yek ji nîşaneyên herî zindî û lojîk û rasteqîne û îroyîn ew e ku hekî di hemû bajarên Îranê de meşên nerazîbûnê bi rê ve diçin, û heta keç û jinên cesûr û çavnetirs xavka bizorî (leçka bizorî) bi darekî dirêj bilind dikin û radihejînin, û çavên wan li ser çepera herî pêş ya azadî û dadxwaziyê wate Kurdistanê ye, ku pêşengê şoreş û nerazînîşandanê ye.

Kurdistana Rojhilat pê daniye nava qonaxa Rasana Rojhilat de, ew qonaxa nû jî bi çend saleka berî hemû cihên din di erdnîgariya Îranê de dest pê kiriye. Di vê qonaxê de pirseke girîng bebrirûyê civakê û tex û qatên curbicur bûye, ku gelo pêşmerge di Rasanê de wê çi bike? Yan bi gotineke din pêşmerge û xelkê nerazî çawa yek digrin, û gelo bi hebûna pêşmerge êdî erk û wezîfe dikeve stûyê wan, û dibe xelk herin malên xwe, yan berevajiya wê rast e, û bi hatina xelkê bo nav qada tekoşînê , êdî erka dîrokî ya pêşmerge bi dawî hatiye, û ji wir şûnda hevsarê xebatê bi xelkê tê spartin, û pêşmerge dibe çeka xwe bavêje û bibe beşek ji girseya gel?

Eva rastiyeke tall e ku rejîmên dagîrker şêwaza berxwedan û xebatê bi ser de disepînin. Bi taybetî rejîma Wilayeta Feqîhî li Tehranê tenê yek zimanî dizane, zimanê gefxwarin û îşkenceyê. Çi bigîje vê ku Kurdek bêje ku ez rejîmê naxwazim, û dixwazim ku li ser xaka xwe biryarê li ser çarenûsa xwe bidim, êdî wê demê ew Kurd dibe dardestê sehyonîzm û împeryalîzm û nasyonalîzm û...hwd û niha jî Erebistanîzm! Û tenê yek hukm heye: Du car îdam!.

Di vê rejîma hov de ku xelkê asayî xwestekek rewa û gellek sade û destpêkî bas dikin, bi agir û asin bersiva wan tê dayîn, û bo mînak her di van meşên nerazîbûnê de, bi gotina berpirsên rejîmê 5 hezar kes detsbiser kirine. Lewra bi agirbaran ve têne pêş da ku xelkê çavtirsandî bikin, û xwezayî ye ku di hember de jî xelk hawara xwe bibin ber tiştekê ku wan ji agirê rejîmê biparêze.

Di pêxema xweparastina ji agirê rejîmê û moraldana bi wan neraziyan ku xelkên cihên din ê Îranê çavnihêr in ku Kurdistan jî bê pêş, û pişta wan bigre, û her di vê demê de jî ku li Kurdistanê meş bi rê ve diçin, xelk dipirsin ku gelo pêşmerge li kûderê ye?

Di bersiva wan daxwaz û çavnihêriyan de ye, ku pêgeha rast û dirust ya pêşmerge di Rasanê de tê dîtin: Amadebûna pêşmerge di nava dilê xelkê de ji bo moraldana bi xebatê û parastina xelkê ji agirê rejîmê. Eva erka nû ya pêşmergê serdema Rasanê ye. Di vê rewş û qonaxa nû de, çi pêwîst nake, ku tenê çiya hêlûna pilingên nava rewta xebatê be, belkû bajar dibe fêrgeha siyas-nizamî û pêşmerge bar tîne, û bi şêwaza nû û hewce wan perwerde dike. Di vê berg û erka nû de, êdî jin û mêr çav li asoya rohn, keç û kurên dil pirr ji hêvî di nava bajar de, li hewşa malên xwe de, çekên veşartî ên bav û bapîrên xwe de, radikin, û paqij dikin. Ew bi paqijkirina van çekan û xweperwerdekirinê, erk û wezîfeya pêşmergê parêzerê xelkê digrin stûyê xwe, da ku bi vî zimanî dgel rejîmê baxive, ku jê tê digihîje.



# Sekreterê giştî ê PDKÎ serdana cihgirê yekem yê sekreterê giştî yê YNK`ê kir




Sekreterê giştî ê PDKÎ serdana cihgirê yekem ê sekreterê giştî ê YNK`ê Kosret Resûl Elî kir.

Li gora nûçeya ku gihîştiye malpera Kurdistanmedia, roja Şemiyê 14`ê Rêbendana 1396`an heyeteke rêberatiya PDKÎ bi serperestiya Mistefa Hicrî sekreterê giştî ê PDKÎ serdana Kosret Resûl cihgirê yekem ê sekreterê giştî ê YNK`ê kir. Heyeta PDKÎ di vê serdanê de, ji aliyê Kosret Resûl û heyeteke rêberiya YNK`ê ve bi germî hate pêşwazîkirin.

Di vê serdanê de sekreterê giştî ê PDKÎ kêfxweşiya xwe derheq baştirbûna tendirustiya navbirî ragehand, û li ser her du beşên Kurdistanê, û pêngavên PDKÎ derheq lihevnêzîkbûna pênc hêz û aliyên siyasî û pêkanîna “navenda hevkariya hêzên Kurdistana Îranê” û herwisa rewşa rejîma Îranê û meşên li bajarên Kurdistan û Îranê gotûbêj kirin.

# PDKÎ gelekomeya li dijî gelê Kurd mehkûm kir

**PDKÎ di daxuyaniyekê de, êrîşa dewleta Tirkiyê li ser Kurdistana Sûriyê û navçeya Efrînê mehkûm kir**

Deqa daxuyaniyê weha ye:

PDKÎ: Em gelekomeya li dijî Kurd mehkûm dikin

Hevwelatiyên Kurdistanê!
Xelkê azadîxwaz ê navçeyê!
Kom û komeleyên navdewletî!

Di van rojan de dewleta Tirkiyê piştî heyameke zaf gefxwarinan, ku bi eşkereyî radigehand ewê êrîşî ser Kurdistana Sûriyê bike, û ji navçeya Efrînê ve dest pê dike, gefên xwe xistin warê piraktîkê de, û bi çekên giran û balafir û bi topbaranê êrîşî ser Kurdistanê kir, û di vê navberê de, canê xelkê sivîl jî ketiye metrsiyê de, û bi destpêkirina êrîşa bejahiyê ya arteşa Tirkiyê jî bo ser Efrînê, egera awarebûna bi hezaran kesî heye.

Di navçeya Rojhilata Navîn de, her rojê di kuncekê de, girûpeke tundrev û terorîst serî radike, û hemû ew girûp ji Komara Îslamî ve bigre heya DAÎŞ û ên din, yekem pêngava wan êrîşkirina li ser Kurdistanê bûye, û bi armanca tunekirin û jînosayda Kurdistanê dest kirine bi êrîşa hovane, lê Kurd jî wekî hêza herî li pêşê ya li dijî terorîzmê, bedela hemû cîhanê, şer digel terorîstan kiriye.

Lê mixabin dema ku metirsiya terorîzmê kêmtir bûye, dijminên hertimî ên Kurdistanê di navçeyê, wate dewletên dagîrker ên hakim bi ser Kurdistanê di hemû beşan de, gelekome li Kurdistanê û li Kurdan kirine, û di van şeran de jî, cîhan tenê çavdêreke bêdeng bûye.

Me mînaka herî zeq û berçav di êrîşa Heşda Şe`ibî û Spaha Pasdaran a Komara Îslamî bo Kerkûkê de dît, û niha jî dewleta Tirkiyê di nava xaka welatekî din de, deshilata Kurdî qebûl nake, û êrîşî ser wê deshilatê kiriye.
Em vê êrîşa dewleta Tirkiyê li ser Kurdistana Sûriyê, û navçeya Efrînê mehkûm dikin, û daxwazê ji hemû civaka navdewletî dikin, ku di hemberî vê gelekomeyê û destdirêjiyên rejîmên zal bi ser Kurdistanê de bêdeng nebin, jiber ku hekî em ji maf û azadiyên mirovî û demokratîk jî bigerin û behsê li ser nekin, lê aliyê kêm Kurd di şerê li dijî terorîzmê de, hevalbendê cîhana azad bûye.

**PDKÎ**
**Deftera Siyasî**
**01.11.1396**
**21.01. 2018**

# Bîrmenedekî Firansî sinaryoya Kerkûk û Efrînê, yek sinaryo dihesibîne

**Bîrmendekî navdar ê Firansî radigehîne ku pêşmerge bi milîşên Şî`e hate firotin, û YPG jî bi arteşa Tirkiyê.**

Hnêrî Lêvî fîlsofê Firansî di vê derheqê de ragehand ku ew ji vê leyîza Amerîka û Rojava tê nagihîje, ku di navçeyê de encam didin, û zelal jî kir ku wê neviyên me şermezar bin, dema ku li dîrokê binêrin, û bibînin ku em jî bêdeng bûne di hemberî vê zilma ku li Kurdan hatiye kirin li Îraqê û îro jî li Sûriyê.
Wî eşkere jî kir ku Erdoxan êdî xwe serokê Tirkiyê nizane, û wisa difikire ku ew dirêjkiriyê sultanên Osmanî ye, lê di vê yekê de jî serkevtî nabe.
Wî bas ji fîlam xwe jî kir, û got ku min ew fîlma belgeyî li ser pêşmerge di Saziya NY de nîşanî beşdaran da, û ezê vê fîlmê ji bo berpirsên payebilind ên leşkerî jî nîşan bidin.



Li gora gotina vî bîrmendê Firansî hekî pêşmergeyên qehreman li Pirdê şerekî qehremanane nekiriban, niha milîşên Şî`e li Hewlêrê bûn, û heman tişt li Efrînê jî rast e. Ew Bîrmendê Firansî li ser vê baweriyê ye ku tenê çiya û bîrûraya giştî ya Rojava digel Kurd e, hikûmet û serokê Firansayê jî dostekî baş ê Kurd e, lê dema ku Amerîka û Birîtaniya û Rûsiye Kurdan bifirşne milîşên Îranî, û wî mêrkê şêt ê Tirkiyê, Fransa jî bi tenê nikare hemû tiştekî bike.

# RMMK: Hukmê îdama Ramîn Husênpenahî û Hidayet Ebdullahpûr hilweşînin

**Rêkxirawa Bergirî ji Mafê Mirovan a Kurdistanê di daxuyaniyekê de hukmê îdama Hidayet Ebdullahpûr û Ramîn Husên Penahî mehkûm kir.**

Di beşek ji vê daxuyaniyê de hatiye:
Di rojên borî de, Dadgeha Înqilab a bajarên Sine û Urmiyê, hukmê mirinê bi ser du hevwelatiyên Kurd bi tohmeta endametî û alîkariya hizbên Kurdî ên dijberî Komara Îslamî derkiriye, ku birrîna vî hukmî ji aliyê dadgeha Înqilabê ve, berevajiyê pîvan û standardên hiqûqî, qezayî, û dadgerî û carrnameya cîhanî ya mafê mirovan e.

Di beşeke din ya daxûyaniyê de hatiye:

RMMK tevî nîşandana nîgeraniya xwe derheq sepandina hukmê îdamê bi ser van du hemwelatiyan de, vî hukmî li dijî mafên medenî û hevwelatîbûnê û bingehên mafê mirovan dihesibîne.
Di dawiya daxuyaniyê de jî hatiye daxwazkirin, ku di demeke zû de hukmê nedadperwerane yê îdamê bo Ramîn Husênpenahî û Hidayet Ebdullahpûr hilweşîne.



# Deqa axavtina Dr. Mîro Eliyar peyamek bi boneya 2`ê Rêbendanê 72.mîn salvegera avakirina Komara Kurdistanê

## Dr. Mîro Eliyar: Dîrokê ew şanazî bexşî PDKÎ ku Komara Kurdistanê wekî yekem deshilata neteweyî ya modern ya Kurd ava bike




**Mêhvanên rêzdar!**

Hevalên Têkoşer!

Xûşk û birayên hêja!

Saleke din derbarz bû, û ew derfeta ji me re pêk hatiye ku carek din bi hev re em rêz bigrin ji yad û bîreweriyên Komara Kurdistanê, û pêdagirbûna me li ser pêbendbûna me bi armanc û îdealên vê deskevta neteweyî, ku di 2`ê Rêbendana sala 1324`an ya Rojî (22.01.2018) li Mehabadê pêk hat.

Ji aliyê Defetra Siyasî ya PDKÎ ve em bi germê bixêrhatina we dikin. 72.mîn salvegera avakirina Komara Kurdistanê li we û tewahiya neteweya Kurd pîroz bê.

Dîrokê ew şanaziya bexşî PDKÎ ku Komara Kurdistanê, yekem deshilata neteweyî ya modern ya Kurd ava bike, û rêberên wê nemir Qazî Mihemed wekî serok û pêşewayê vê Komarê bihê diyarîkirin.

Em serbilind in bi vê ku Komar îrorojê di hemû beşên Kurdistana dabeşkirî de, wekî deskevteke mezin û neteweyî ya gelê me tê rêzgirtin. Ji aliyekî din ve em dizanin ku neyarên Kurd bi taybetî rejîmên seberedayî û nasyonalîstên berçavteng ên neteweya hakim, vê gazindeyê li Kurdên Rojhilat dikin, ku ji lawaziya hikûmeta paşatiyê û ji rewşa taybetî ya navneteweyî ya wê demê wekî derfet bo avakirina Komara kurdistanê mifah wergirtine!.

Niha wî karê me, wekî pêngaveke cudahîxwazane û hevdestî digel bîhaniyan didin nav çavên me, û li ser vê bawriyê ne, ku dibe ji îde û armancên Komarê em dûr kevin!.

Lê em Kurd rast berevajî, avakirina Komara Kurdistanê wekî pêngaveke rewa ji bo bidestxistina çarenûsa xwe û dabînkirina mafên siyasî ên gelê xwe çav lê dikin, û yad û bîra Komarê bilind radigrin.

Avakirina Komara Kurdistanê berhema xebata rizgarîxwazî û îradeya qahîm ya neteweya me di Rojhilata Kurdistanê de bû.

Eva ku Kurd û rêberên Komarê ji lawaziya dîktatoriya hikûmeta wê demê ya Îranê û rewşa baş ya navneteweyî ya wê serdemê bo bileztirkirina pêvajoya dabînkirina mafê mafê diyarîkirina çarenûsa neteweya xwe mifah wergirtiye, ew yek hişyarî û "şem" a siyasî ya Pêşewa û rêberên din ên Komarê diselimînin. Em aferînê dibêjne wan, û em serbilind in bi vê ku em rêvîngên riya wan in.
Tu neteweyek nine ku şanaziyê bi dîrokê û deskevtên xwe ên neteweyî neke.
Em jî her bi vî awayî rê nadin tu kesî ku vê hest û mafî ji me bistînin.
Bo me jidayîkbûna Komara Kurdistanê rûdaweke girîng e di dîroka neteweya Kurd de , û pêwîst e ku hemû salê em van deskevtan bînin bîra xwe, û rêz jê bigrin.

Belê em şanaziyê dikin bi bifermînasîna zimanê Kurd û mafê xwendina bi zimanê dayîkê ji bo zarokê Kurd, mafek ku heya niha jî di Komara Îslamî de ji xortên Kurd hatiye zewtkirin.

Em şanaziyê dikin, bi hêza pêşmergê Kurdistanê, ku sembola berxwedanê, û yek ji fakterên serekî ên parastina nasnameya neteweyî ya Kurd e.

Xwezayî ye ku em serbilind bin bi bilindkirina alaya Kurdistanê, û balkêş e ku 72 salan berî niha pirs û azadiya jinê li bernameya karê Komara Kurdistanê de bûye, û hewl ji bo dabînkirina mafên jinê hatine dayîn. Belê em şanaziyê dikin bi hebûna vê emniyet û azadiyên demokratîk ku Komarê tenê di heyama 11 mehan de, ji bo Kurd û xeyrî Kurd dabîn kiribû. Heqê me xwe ye ku em bi çavê rêz û hurmetê ve, awirekê bidin wan hevkarî û hevpêwendiyên germ û gurr, ku ji bo xortên Kurd di beşên Kurdistaê de pêk hatibû. Hizûra berçav û bibandora ya Barzaniyan bi serokatiya xwedêjêrazî Mela Misetefa Barzanî di Komara Kurdistanê de nîşana vê rastiyê ye.

Em girîngiyeke tewaw didin van pêwendiyên dostane û alîkariya di navbera du deshilatên Komara Kurdistanê û hikûmeta millî ya Azerbaycanê. Bi taybetî diyaloga demokratîk û berpirsane ya wan du hikûmetan, ku dikare wekî mînak û ezmûneke serkevtî bo pêşeroja Îrana çend neteweyî dikare roleke yekalîker bilîze.

Bi kurtî îrorojê piştî zêdetir ji heft dehikan, xelkê Îranê û gellek welatên navçeyê di destê dîktatoriyê de dinalînin û qurbaniyan didin. Bidestxistina maf û zadiyên ku Komara Kurdistanê di heyama kêmtir ji yek salî de, li Kurdisatanê dabîn kiribû!.

Eşkere ye ku vejiyandina kêm mînak ya bîr û hesta neteweyî, avakirina deshilata siyasî bo Kurd û vegeşiyana kesayetiya takê Kurd, pêwîst e ku wekî binirxtirîn û bibandortirîn deskevta Komara Kurdisatanê di mêjiyê hemû takeke Kurd de çav lê bihê kirin, û bihê parastin.

Ew deskevta ku îro rojê jî hêvin û palderê me Kurdan e bo berdewambûna li ser xebatê bo rizgariya neteweyî, û bidestxistina azadî û mafê diyarîkirina çarenûsê, wekî pîroztirîn armanc û peyama Komarê.

Rêzdarno!

Di sala 1396`an ya Rojî de ku ber bi tewawbûnê ve diçe, gellek bûyerên girîng rû dane, lê ez dixwazim ku tenê îşarê bi du bûyeran bikim, ku rasterast pêwendiya wan bi pirsa Kurd û Îranê ve hebû:

Yekem êrîşa leşkeriya arteşa Îraqê li ser navçeyn cihnakok ên Başûra Kurdistanê û dagîrkirina wan navçeyan bû, ku bi pîlan û fermandehî û rênîşandana eşkere û rasterast ya Spaha Pasdaran a Îranê bi rê ve çû. Di vir de ez naçim nava alî û sedemên vê bûyerê de, belkû merema min bibîranîna siyaseta dijminkarane û rola kavilkerî ya rejîma Komara

Îslamî di pirsa Kurd de ye.

Bûyerên meha Octobera 2017`an a Zayînî cardin bo cara çendê selimand ku hikûmeta Îranê neyar û dijminê serekî ê maf û azadiya Kurd e di hemû beşên Kurdistanê de. Kurd dibe du dersên girîng ji vê bûyerê wergire. Yekem, Kurd bi giştî û li her beşeke Kurdistanê û bi me xwe ve jî, hekî pişta xwe bi Komara Îslamî ve girê bide, şaşiyeke mezin dike, û gellek giran wê ser wê tewaw bibe.

Duyem- Biselimînin ku duberekî û natebahiya di nav mala Kurd de, ew sedema serekî ye, ku derî bo dijminan dixe ser piştê, ku pîlan û pilanên xwe di Kurdistanê de bi serkevtin ve bigehîne encamê!.

Her kes û aliyek ku vê rastiyê nebîne, bixwe tenê ji êşên duberekî û ji encamên karesatbar ên bawerîkirina bi rejma Îranê berpirs e, û nabe gazindeyan li kesî bike.

Duyem bûyer serhildana vê liv û tevgera bilome ya xelkê bêzarbûyî yê Îranê ye ku li 7`ê Befranbara sala 1396 (29.12.2017) de li Îranê çê bû, û bi awayekî bilez û çavnihêrnekirî piraniya bajaran bi xwe ve girt.

Vê serhildanê bala bîrûraya giştî ya navçê û cîhanê bo aliyê rewşa terajidîk û şepizeyiya siyasî û aborî û civakî ya gelên Îranê li jêr deshilatdariya Komasra Îslamî de bo aliyê xwe rakêşa.

Serhildana vê carê ya xelkê li dijî rejîmê gellek cuda bû ji meşên berê, û girîngî û wateya taybetî hebû û heye, û cihê hêviyê ye.

Hemû sîstema Komara Îslamî kire armanc. Diruşmên xelkê bi tewahî eşkere kirin, ku gelên Îranê ji leyîza du bereyên reformxwaz û pawanxwaz derketiye û derbaz bûye, û xwe sax kirine.

Cihê baldanê ye ku meşvanan vê carê heya li yek cihî de jî bas ji rakirina çavdêriya li ser rêberên tevgera Kesk nekirin, ku diruşmeke serekî ya reformxwazan e!.

Xelkê Îranê ji bo wan eşkere bûye ku cudahî û netebahiya di navbera du baskên rejîmê de, ne li ser berjewendî û dabînkirina maf û azadiya xelkê ye, belkû tenê li ser çawanî û dabînkirin û parastina deshilat û berjewendiya taqmên xwe, û di çarçoveya sîstemekê de ye.

Helwesta durûyane ya reformxwazan di kelekela meşan de, guman di rastbûna vê boçûnê de nehêlaye.

Lewra xelkê bawerî bi tu yek ji baskên rejîmê nemaye. Dizanin ku herdu bas jî asteng in li ser riya pêkhatina guhetinên siyasî di berjewendiya xelkê de, û herdu alî jî asteng in li ser riya serkut û dîktatorî û dizî û gendeliya hikûmetî.

Wê serhildanê hikûmet xirap xiste tengaviyê de. Tu carî weha bi berfirehî û bibawer ve rewayiya tewahiya sîstemê neketiye jêr pirsyarê, lewra rejîm birîndar û tûre ye, û wekî hemû nizamên dîktator ên dîrokê bi xatircemî ve, wê hemû îmkanat û maşîna serkuta xwe bo bêdengkirin û serkutkirina xelkê nerazî bixe kar.

Çi dûr nine ku rejîm bikare bo heyameke zaf dawiyê bi meşên nerazîbûnê bîne. Lê guman têde nine ku rewş ji vê derketiye ku bikare bo hertim tevgera azadîxwaziya vê carê serkut bike.

Her niha jî li şer û rikeberiyên di navbera xelkê û hikûmetê de, aliyê serkevtî xelk e! bila serkevtin "meqte`î" û sembolîk jî be, jiber ku: di demekê de ku rejîmê rewayiya xwe ji dest daye, û valahî ketiye nava rîzên wê de, xelk bi awayekî rêjeyî yekgirtî û yekparçe ye. Serhildana vê carê berevajiyê tevegra Kesk di Tehranê de, di çend cihekî de sînordar nemaye. Xelk bi giştî tê de beşdar bû. Hem tirsa xelkê şikest, û hem jî tabo şikandin.

Heta hekî meşên xelkê bi awayekî demkî jî werin serkutkirin, derketina xelkê ji leyîza nebimbarek ya du bereyên reformxwaz û pawanxwaz de deskevteke girîng bû ji bo gelên Îranê, û şikesteke tall bo rejîma Îranê bû.
Komara Îslamî li gora cewhera xwe, ew hêz û îrade û şiyan nine ku dengê xelkê bibihîze, û bi xwe de here û dev ji serkut û dizî û gendeliyê berde, û xwestekên xelkê qebûl bike, û di berjewendiya xelkê de, guhertinan di siyasetên xwe de pêk bîne, rejîmê vê carê jî bersiva daxwaziyên xelkê bi serkuta zêdetir dide.
Lewra dibe ku çavnihêr bin ku liv û tevgerên nerazîbûnê bi awayekî berfirehtir û tundtir ji vê carê serî hildin, û zêdetir rejîma Îranê wê bixin tengaviyê de.





Bi taybetî ku dibînin jî, ku niha civakek medenî û hişyar û çavvekirî di Kurdistanê de şikil girtiye, û di vegeşiyana berdewam de ye. Asoya tevgera azadîxwaziya gelên Îranê jî zelaltir xuya dike. Lê dibe em vê yekê jî bizanin ku rejîmeke serkutkar bi vê hindê narûxe.

Paşekêşeya Komara Îslamî û serkevtina xelkê, girêdayî ye bi mana xelkê di yekrêziyê û hişyarbûna opozisyona navendî, û rêkkevtina hizbên siyasî li ser pilatformeke demokratîk û hevbeş bi beşdariya nûnerên hemû gelên Îranê bi armanca sazkirina altirnatîveke giştgîr.

Çavnihêriya guhertinên kûr di Îranê de tê kirin, û di vê derheqê de, erkeke giran dikeve ser milên hizbên Rojhilata Kurdisanê. Di vê qonaxê de, em bona vê ku bi giraniyeke hêjayî xwe di vê piroseyê de beşdar bin, û bandora me li ser pêvajoya bûyeran hebe, û em bikarin dengê xwe bigehînin civaka cîhanî, û amade bin bo berbirûbûna pêşhatên îhtimalî (gengaz) ên ji nişkêve, û maf û azadiyê bo gelê xwe desteber bikin, dibe berpirsane em pêngavan hilgirin, û dawiyê bi vê jihevbelaviya niha bînin, û bi hêza yekgirtî wekî Kurd em dest bi diyalogê bikin, digel aliyên pêwendîdar ên din.

Hewl ji bo yekrêzî û hevkarî û pêşvebirina xebata neteweyî-demokratî di Rojhilata Kurdistanê de, têne dayîn, û em jî bi geşbînî ve dinihêrne hewlên hizbên xwe di pêxema bidestveanîna van armancên pêwîst û pîroz, û serkevtina wan hêvî dixwazin.

**Bilind û pîroz be yad û bîranîna Komara Kurdistanê û rêberên wê**

**Silav li xelkê Kurdistanê**

**Silav li riha pak ya hemû şehîdên Kurd û Kurdistanê**

**Silav li malbatên şehîdên me ên serbilind**

**Silav li girtiyên siyasî, xortên xwedîhelwest û xweragir ên gel**

**Berdewam be xebata hizba me ya têkoşer di pêxema bidestxistina yekcarî ya armancên Komara Kurdistanê**

**Hûn jî her sax û serkevtî bin**

# Şêlûtiyên "Social media"yê



**Agirî Îsma`îlnijad**

"Social media" çi wekî diyarde, û çi jî wek derfet gellek rewş ji bo civaka Rojhilata Navîn pêk anîne. Rojhilata Navîn civakek ku di biyavê deshilatdariya siyasî de, pêkhateyeke totalîtar-dîktator bi ser de zal e, û di biyavê civakî de jî, civakeke dogm û pirr ji xurafat û qedexe û qorixan e, hevdem digel vê yekê jî, civaka me (wekî kesên xelkê Rojhilata Navîn) bi derdê berellayî û sergerdaniyê ve dinalîne. Em di civakekê de dijîn ku tê de her sal ji bîr û hizr ve bigre heya xwast û pêwîstî û hezkirin û hêvî, heya nerazîbûn û şoreş, hemû tiştek di çarçoveya xwesteke takekesekî û veşartî de maye, û bi sedema tirsa ji dezgeha serkutê ya rejîman, civak û texên di nav de, şêwe û şêwaza giştî bi xwe ve negirtiye.

"Social media"yê ew derfet saz kir ku xelkê vê civakê bi bê nirxeke wisa bikarin şebekeya xwe li ser bingeha bîr, hez, xwestek, hêvî û şoreşê ava bikin.

Di vir de ya ku "Social media"ya Rojhilata Navîn ji "Social media"ya navçeyên din ên cîhanê cuda dike, baseke taybetî ya Rojhilata Navîn wate cemika dîktator-terorîst e.
Ya ku niha di Rojhilata Navîn de û piraniya welatên Misilman ên Erebî di gorê de ye, yan deshilateke dîktator-totalîtar e, yan aloziyek ku encama terorîzm û şerê bedel (wekalet) e.
Di vir de du behs hene:

Yekem: Piraniya welatên Rojhilata Navîn, ên ku deshilatdarê tenahiya berçavkî ne, seqamgîrî tê de heye, wekî Îran, Tirkiye, Erebistan, Qeter û Îmaratê, û ew "Social media"yê wekî gefa li ser gotara zal ya xwe dizanin, û kêm û zêde hemû jî li dijî "Social media" sekinîne û disekinin.
Duyem: Girûpên terorîstî ên çalak di Rojhilata Navîn de, "Social media" wekî amêreke pêywendiyan û endamgîrî, û wekî medyaya fermî ya xwe bi kar tînin.

Li ser "Social media" li Îranê de, mirov dikare ku bi zelalî bêje ku Komara Îslamî, wekî rejîmeke totalîtar, "Social media"yê wekî metirsiya herî mezin li ser xwe dizane.
Hevdem opozisyona Îranê, wekî derfetekê bo pêwendîgirtina digel xelkê navxwe a Îranê û sazkirina şebekeyênn mecazî di navxwe ya Îranê û wekî amêrekê bo belavkirina dengê xwe lê dinihêre, û xelkê Îranê jî wekî çavkaniyeke zanyarî yan amêrekê bona guhertina zanyariyan lê dinêre.

Komara Îslamî bi zelalî sê siyasetên gellek dij bi yek bona rûbirûbûna digel "Social media" peyrew kirine:
1-Siyaseta fermî ya Komara Îslamî ew e ku piraniya şebekeyên civakî ên naskirî ên wekî facebook û twîtterê fîlter bike.
2-Ji riya danîna girûpeke taybet bo rasterêkirina basên şebekeyên civakî, berdewam di hewlê de ye, rêgir be ji vê ku ji berfirehiya şebekeyên civakî, wekî rûberekê ji bo dijberiya rejîma Îranê mifahê wergire.

Hevdem digel vê yekê bo kartêkirina li ser raya giştî, çi di navxwe ya Îranê û çi di navxwe ya welatên Misilman, şebekeyên civakî bi kar tîne, wate weke derfeteke medyayî lê dinêre.

3-Komara Îslamî şebekeya civakî wekî amêreke bo şerê nerm li dijî opozisyon û dijberên navxweyî û derekî ên xwe bi kar tîne.
Li ser basê şerê nerm li "Social media"yê de dibe em çi bêjin, jiber ku "Social media" ji yasayeke taybet peyrew nake, hemû aliyek dikare bi vê cureya ku bixwe ser vê baweriyê ye bandoreke zor heye, şer digel hemberî xwe bikin, wate tu sînoreke exlaqî di şerê nerm ên nav "Social media"yê de de nine.

Komara Îslamî jî eva wekî derfetê dîtiye, û di basa şerê nerm li dijî Kurdistanê di biyavê "Social media"yê de, hewl daye, ku zimanê pîs û qisên sivik bike rêxweşker bona vê ku, şerê li dijî neyarên xwe pêşve bibe, jiber ku civaka Kurdistanê bi wan gotinên pîs têk diçe, wate li biyavê derûnî de, kartêkeriyê li ser dike.

Hekî em bixwazin, li ser live a facebookê vê boçûnê peya bikin, dibe em bêjin ku live a facebookê ku bingeha wê li ser gotinên pîs hatiye avakirin, zêdetir ji aliyê dezgehên ewlehiyê yên rejîmê ve têne rêxistin! Diyardeyek ku bi hêsanî dikare di civaka Kurdistanê de berdengan ji xwe re peyda bike, û armanca xwe pê bipêke.

# Şirovekarekî Amerîkayî: Dibe endametiya Tirkiyê di NATO`yê de bê helavîstin

**Kurdistanmedia: "Ralif Pîtêrs" Şirovekarekî Amerîkî di "Fox News"ê de bêhelwestiya Amerîkayê derheq êrîşa li ser Efrînê de rexne dike, û Amerîkayê wekî bêmejî bi nav dike.**

"Ralif Pîtêrs" pesna Kurdên Sûriyê dike, û dibêje: Kurdên Sûriyê di şerê li dijî terorê de hevpeymanê wan yê rasteqîne bûne, û tu carî pişt li wan nekirine, û di sedsala borî de xaka wan ji aliyê çend hikûmetên çilûz ên Ewropî ve hatiye perçe-perçekirin, lê niha Amerîka li pirsa dagîrkirina Efrînê de pişt li wan dike.
Ew dibêje bo nabe em Tirkiyê ji NATO`yê bavêjin derve, Tirkiye niha bûye hevpeymanê herî xirap.Erdoxan pişta Îxwan El-muslimînê digre, medyayên azad daxistine, û niha jî êrîş kiriye ser baştirîn hevalbendê Amerîkayê li Rojhilata Navîn de piştî Îsraîlê. Piştre dibêje bi kurtî ez bêjim ku: Tirkiye xirap e, Kurd baş e, Amerîka jî bêmejî ye.
"Ralif Pîtêrs" Şirovekarekî Amerîkî di bersiva pêşkêşkara "Fox News"ê de ku jê dipirse, gelo hekî Kurd pişt li me bikin wê çi be? Dibêje ku em 25 sal in, digel Kurdan hevalbend in, û ew tu carî pişt li me nakin.
Me di sala 2003`an de dikarî Îraqê dabeş bikin, lê me nekir, û niha jî em bihêlin ku Kurd ji aliyê Tirkan ve bêne cînosaydkirin.
Jiber ku Kurdan di şerê li dijî terorê de xwîna xwe rijandine, dibe ku di warê exlaqî de, em pişta wan bigrin, û em deyndarê wan in û Kurd dibe bêne parastin.



Pêşkêşkara "Fox News"ê jî dibêje ku di rastî de Kurd hevalbendê herî rastbêj in digel Amerîkayê.

**»»» Doma Manşêtê**

Kurdistanê, sirûda bi navê "Rêbendan" pêşkêşî xelkên beşdar di wê rêûresmê de kirin.

Piştre çend stran ji aliyê "Ferheng Xizirî", "Nizam Secadî" û "Osman Rehmanî", bi alîkariya koma mozîk a hizbê hatine pêşkêşkirin.Di dawiyê de, Rêûresm bi govend û dîlana giştî dawî pê hat. Li derveyî welat jî endam û alîgirên PDKÎ çendn merasim bi vê boneyê ve bi rê ve birin, û rêz ji 2`ê Rêbendanê girtin.

Endam û alîgirên PDKÎ li navxwe a welat de jî, serbarê rewşa tund ya ewlehiyê, bi belavkirina tirakt û posterên taybet bi vê rojê, û nivîsandina diruşman li ser der û dîwaran, ew roja dîrokî bi bîr anîn.

## Nerîna Lîderan



Trump: “Em digel Taliban gotûbêjan nakin”.



Îbrajîm Ce`iferî: “Em êrîşên ser Efrînê şermezar dikin”.



Heniye:
“Ez şanaziyê dikim ku navê min di rîzbenda terorê ya Amerêkayê de be. Ezê bi şanazî ve wekî medala şanaziyê li ser singe xwe bidim”.



Rûhanî: “Amerîka bi zimanekî tûj, bi çekên etomî ên nû gefan li Rûsiyê dixwe”.

## Bêşikiçî: Di Efrînê de îxanet nayê kirin, ji ber vê jî heyanî niha berxwedanê dike



**Îsma`îl Bêşikçî kesayetiyê civaknas û siyasî û dostê gelê Kurd, êrîşa artêşa Tirkiyê li ser Efrînê wiha nirxandiye, ku di Kerkûkê de îxanet hate kirin, lê li Efrînê îxanet tunîne, ji ber vê jî Efrîn neketiye.**

“Îsma`îl Bêşikçî” di gotûbêja digel rojnameya “Gezeteduwar” a Tirkiyê de ragehand ku: Efrînê bajarê kurdan e, û gelê Kurd û xelk berevaniyê ji wî bajarî dikin, û li hemberî êrîşên artêşa Tirkiya dagîrker de disekinin, lê bajarê Kerkûkê di 16`ê Oktoberê de îxanet jê hate kirin, her bi vê sebebê jî bû ku bajar hate dagîrkirin, lê di Efrînê de îxanet nayê kirin û Efrîn weke Kerkûkê nayê dagîrkirin.

Bêşikçî basa vê jî kiriye ku, Rûsiyayê ji Partiya Yekîtiya Demokratîk (PYD)ê, û çiqa siyasî a Partiya Kedkarên Kurdistanê (PKK) a di Rojavayê Kurdistanê de, daxwaz kiribû, da ku li Amerîkayê dûr bin, û alîkariya rejîma Sûriyê bikin, lê “PYD” ev daxwaza red kir, û her bi vê sebebêye jî Sûryie û Rûsiya bi vê opozisyona Tirikiyê ya li dijî Efrînê razî bûne.

Di heyama rojên derbazbûyî de, Dewleta Tirkiyê piştî heyameke dûr û dirêj bi gefxwarin û givaşan, bi awayê zelal ragehand ku êrîşê dibe ser Kurdistana Sûriyê, û di devera Efrînê de jî wê dest pê bike, û niha wan gefên xwe bi kiryar encam dide û bi çekên giran û balafirên şerker û topxaneyan êrîş kiriye ser Kurdistanê, û di vê navberê de jî, canê xelkên sivîl ketiye metirsiyê de, û bi destpêkirina êrîşa bejahî a artêşa Tirkiyê li ser Efrînê, egera avarebûna hezaran kesî heye.

## Hesen Nowrozî: Xwenîşanderan heb xwaribûn

**Berpirsyarên rejîma Îranê bona vê ku ji dest cinayeta kuştina girtiyan xwe rizgar bikin, boxtanan li girtiyan dikin, û dibêjin wan heb xwaribûn, û piştre li dijî Komara Îslamî rijiyabûne ser kûçe û kolanan.**

Hesen Nowrozî berdevkê Komîsyona Qezayî û Hiqûqî ya meclisa rejîmê ragehandiye: Hinek ji girtiyên xelkê Kirmaşanê digotin ku çima we em anîne vir. Berpirsên girtîgehê jî gotne wan ku we êrîşî ser her ciyekî dikir, û we şûşe dişkandin û we alozî çê dikir. Lê girtiyan gotin ku me nezaniye, û me haj xwe nebûye. Jiber ku em biribûn cihekî, û heb dane me, û piştre em hatin ser şeqaman.
Wî herwisa kuştina du girtiyên din vegerandiye ser vê ku, wan girtiyan zanîne ku guneh kirine, lewra li ber hestkirin bi vê guneha xwe bêhiş ketine û mirine.

Navbirî wekî vê ku tu kes wan nas nake, û nizane ew çiqas bêrehm û cinayetkar in, bi derev bas ji vê dike ku ew her girtiyekî digrin, berî ragirtina wî/ê, em hewl didim wî azad bikin, û daxwaza danîna “wesîqe”yê jê dikim, û qaziyên din jî wisa nin.
Ew îdi`ayên vî axûndî di demekê de ne, ku di girtîgehên rejîmê de cinayetên herî hovane têne encamdan, û mînaka herî nû jî, êrîşa bêrehmane li ser meşvanan li bajarên curbicur ên Îranê de, û kuştin û birîndarkirina bi dehan kesî û kuştina çend kesan di nava girtîgehan de li jêr îşkenceyê de bû, ku îsbat bûye hinek ji wan girtiyan bi xwarina heban jiyana xwe ji dest dane.

Roja Sêşemî 26`ê Befranbara 1396`an, “Mehmûd Sadiqî” yek ji nûnerên rejîma Îranê di meclisê de, di vê derheqê axivî û got: Ew girtiyê ku di vê dawiyê di girtîgehê de jiyana xwe ji dest dabû, di pêwendiyeke telefonî de, ji malbata xwe re gotibû, ku rejîm girtiyan neçar dike da ku hin heban bixwin, û girtî jî piştî xwarina wan heban rewşa tendirustiya wan têk diçe.



## Hejmarek xwefiroş li Kirmaşanê hatin kuştin

**Di encama êrîşa çend kesên nenaskirî ên çekdar li parêzgeha Kirmaşanê de, çend kirêgirtiyên rejîma Îranê hatin kuştin.**

Li gora nûçeya gihîştî bi malpera Kurdistanmedia, roja Şemiyê 7`ê Rêbendanê, di encama êrîşekê de bo ser caş û kirêgirtiyên rejîma Îranê, li bajarokê Êzgile ya Kirmaşanê, çend xwefiroş hatin kuştin.
Nûçegihanê malpera “Kurdistanmedia”yê di vê derheqê de bas ji vê kiriye ku ew kirêgirtî xelkê bajarê Selas a Bawecanî bûne, û nasnameya wan “Salih Şê`irî, Husên Mihemedî, Ehmed Şohanî, Ezîz Şê`irî” ragehandiye.
Ehmed Şohanî ji çekdarên tîpa “Ensar Elhusên Hemedan” bûye, û herwisa Salih Şê`irî jî xelkê Ciwanroyê û xanenişîn bûye, lê dîsan jî dest bi kar bûye.
Heya niha tu girûp û aliyekî ew êrîş nekêşaye stûyê xwe, lê çavdêrên siyasî bas ji vê dikin, ku ew yek pîlan û hêceta rejîma Îranê ye bona vegeşandina serkut û îdamên di Kurdistanê de.

## Komara Azerbaycanê ji çalakiyên Spaha Pasdaran, di wî welatî de nîgeran e




Navendên ewlekariyê ên Komara Azerbaycanê di vê dawiyê de hişdarî dane ku, rejîma Îranê destêwerdana xwe di nava wî welatî de berfireh kiriye, û tê texmînkirin, ku beşeke zêde ji xelkên wî welatî li jêr bandora rejîma Îranê de bin.

Li gora raporên navendên Ewlekariyê ên Azerbaycanê, bi berfirehbûna çalakiyên Şî`eyan yên ku li jêr bandora rejîma mesebî a Îranê de ne, di navbera piraniya hemwelatiyên tundrev û Azeriyên nermrev de, dijayetî û nakokî dirust bûye û ji hev cuda bûne.

Herwisa Îdareya Îtila`ata Azerbaycanê jî dibêje, li gora raporên fermî yên wê navendê, ji nav 150 xwendingehên Şî`e yên wî welatî de, 22 ji wan xwendingehan li jêr kontrola tewaw a rejîma Îslamî a Îranê de ne.

Piştî jinavçûna Yekîtiya Soviyetê û gihîştina Komara Azerbaycanê bi serbixweyiyê, pêwendiyên di navbera Îran û Azerbaycanê de, heyanî niha gellek caran evraz û nişîv bi xwe ve dîtine, çimku Azerbaycan ji destêwerdana mesebî a rayadarên rejîma Îranê di nav karûbarên xelkên wî welatî de nîgeran e.
Ji aliyekî din ve, rejîma Tehranê jî nîgeranê nifûzkirina Azerbaycanê di nav bajarên Azerîziman ên bakûrê Îranê ye.
Herwisa Sapaha Pasdaran a rejîma Îslamî a Îranê, milîşên Azerîziman yên girêdayî vê saziyê, ji bo komkirina zanyarî û lidarxistina teblîxên li dijî dewletê, di welatê Azerbaycanê de alîkarî dike, û piraniya wan jî Şî`ên tundrev in. Hêjayî basê ye ku, destêwerdanên bi vî rengî Komara Azerbaycanê, bi awayekî tund ji aliyê rejîma Îranê ve, nîgeran kiriye.

## Netanyahu: Emê bi hemû hêza xwe li hemberî rejîma Îranê de bisekinin



Serokwezîrê Îsraîlê derheqê gefên rejîma Îranê, yên li ser welatê xwe û hebûna hêza leşkerî a rejîma Îranê di Sûriyê de hişdarî da.

Li gora raporên belavbûyî, "Benjamin Netanyahu" Serokwezîrê Îsraîlê di serdana xwe ya bo welatê Rûsiyayê de digel "Wilademir Potin" Serkomarê wî welatî civiya, û derheqê metirsiyên rejîma Îranê yên li ser ewlehiya deverê û gefên li ser welatê Îsraîlê gotûbêj kirin.
Benjamin Netanyahu derheqê nîqaşên rayadarên rejîma Îranê gotiye ku: "Holocaust"eke din naqewime", û navbirî herwisa tekez jî kiriye ku rê nadin daku rejîma Îranê Lubnananê, weke sekoyên mûşekî mifahê jê werbigire.
Rayedarên rejîma Îranê îdi`aya jinavbirina Îsraîlê dikin, lê "Netanyahu" dibêje ku, ewê bi hemû hêza xwe li hemberî rejîma Îranê de bisekinin, û her di vê derheqê de jî hem "Netanyahu" û hem jî "Vladimir Putin" di vê civîna xwe de ragehandine ku, ew qebûl nakin ku Lubnan bibe sekoya mûşekên rejîma Îranê.Herwisa di çend rojên derbazbûyî de, "Run Minlis" berdevkê artêşa Îsraîlê, gotibû ku: sala 2018`an sala ceribandina Lubnanê ye, û bihêzbûna pêgeha rejîma Îranê di vî welatî de dibe sedema geşbûna agirê şer.Herwisa navbirî zêde kiriye ku guhnedana hindek welatên cîhanê, derheqê bihêzbûna rejîma Îranê di Lubnanê de, bûye sebeb ku Lubnan bibe karxaneyeke herî mezin a dirustkirina mûşekênÎranê.
Di heyamên borî de, malpera întêrnêtî a "DEBKAfile" a girêdayî Îdareya Îtila`ata artêşa Îsraîlê, berpirsên Sûriyê haydar kiribûn, ku hekî rejîma Îranê binkeyên leşkerî di vî welatî de ava bike, "Tel Aviv " wê êrîşa leşkerî bike ser vî welatî.
Herwiha di demên derbazbûyî de jî, "Netanyahu" ragehandibû ku, bi hebûna desthilatdariya rejîma Îranê di Sûriyê de, bi qazanca Moskoyê jî nine, û emê bi hemû awayî rê ji hebûna leşkerî a rejîma Îranê û destûpêwendiyên rejîma Îranê di Sûriyê de bigrin.

## Bihêzbûna rola Îranê di Lubnanê de şer li pey xwe tîne



Artêşa Îsraîlê di peyameke nivîskî de, ji dewleta Lubanên re hişdarî daye ku, hebûn û bihêzbûna hêzên terorîstî yên Îranê, di, wî welatî de, şer li pey xwe tîne.

Li gora raporên belavbûyî, roja Yekşemî 8`ê Rêbendana 1396`an, artêşa Îsraîlê bi belavkirina peyameyeke nivîskî ji dewlet û xelkê Lubnanê re dawxaz kiriye da ku, pêş ji dirustbûna şer di deverê de bigirin.
Ev peyama hişdariyê bi zimanê erebî hatiye belavkirin û xeyrî vê ku di medyayên Îsraîlê de belav bûye, di medyayên opozisyon yên Lubnanê û yên deverê de jî belav bûye.
Her di vê derheqê de jî, Serheng "Run Minlîs", berdevkê artêşa Îsraîlê, tekez jî kiriye ku, di encama xemsariya rayadarên Lubnanê û guhnedana civaka navneteweyî di vê derheqê de, welatê Lubnanê wê bibe yek ji karxaneyên herî mezin yê dirustkirina mûşekan di deverê de.
Navibrî tekez jî kiriye ku, îdî tenê behsa birina çekan, pere û hemşêvriyê nine, belku Îran di Lubnanê de, bi kiryar wan çalakiyan encam dide.
Wî fermanderê leşkerî yê Îsraîlê îşare bi terorîstên di deverê de kiriye û got ku: "Qîs El-xez`elî" yek ji fermanderên "Heşda Ş`ebî" ku di Îraqê de digel fermanderên Hibullahê hatiye bakûrê Lubnanê nêzî sînorê Îsraîlê, ev terorîsta welatê Lubnanê ber bi metirsiyên şer dibe.

# Zerdeştiyekî Îranî-Amerîkayî digel hevjîna xwe hukmên giran wergirtine

**Dadgeha Înqilab a Tehranê kesekî Zerdeştî bi navê "Karin Wefadarî" ku hemwelatiyekî Îranî ye, û îqameya Amerîkayê heye, bi 27 sal girtîgehê, û hevjîna wî bi navê "Aferîn Nîsarî" ku ew jî Îranî ye, û xwediyê îqameya Kanadayê ye, bi tohmetên emniyetî bi 16 sal girtîgehê mehkûm kir.**



Navenda Parêzerên Mafê Mirovan radigehîne, ku dagehê ew her du hevjîn, di çiqa 15 ya dadageha Înqilabê de, ku bi serokatiya dadwer Selewatî bi rê ve çû, piştî 17 mehan ragirtina wan bi awayê demkî di detsbisergehê de, biryara danîna wesîqeyeke (bedeleke) 100 milyard Tûmenî bo wan derkiribû.
Şîrîn Îbadî mafnas û wergirê xelata Nobelê ragehand ku serbarê tohmetên din, jiber ku Karin Wefadarî zerdeştî ye, û hevjîna wî Misilman e, ew yek jî wekî tawaneke din dê hesibandin, û herçend navbirî ragehandiye ku ew bûye Misilman, lê zehmet e ku di dadgehê de ew yek bê qebûlkirin.
Şîrîn Îbadî ragehandiye ku berpirsên qezayî di yek sal û nîva derbazbûyî de malbata wan du kesan xistine jêr zextê de, da ku bi çi awayî vê nûçeyê ji bo raya giştî û ragehandinan bas nekin.
Li gor gotina mafnas Şîrîn Îbadî, rejîm dixwaze bi girtina hevwelatiyên xwe yên ku regeznameya Amerîkayê hene, poanan (îmtiyazan) ji Amerîkayê wergire.

Di van salên dawiyê de, çend hevwelatiyên du regeznameyî bi taybetî çend Îranî-

## Parêzgarê Elborzê: Dibe ku em zêdekirina heşîmetê li gora gotinên rêberê xwe bihêz bikin



Di demekê de ku xelkê Îranê di rewşeke herî xirab û dijwar a aborî de ne, gotinên rêberê rejîma Îranê ji bo zêdekirina heşîmetê, di destûra karê berpirsên welat de ye.

Li gora rapora nûçegihaniya "Îrna" a girêdayî rejîma Îranê, roja Çarşemî 11`ê Rêbendana 1396`an, "Mihemedelî Necefî" parêzgarê bajarê Elborzê ragehand ku: Dibe hişdariyên rêberê rejîmê, di behs û gengeşeyên derheqê zêdekirin heşîmeta welate de, bibin bingeha darêtina pirogramên kabîneya dewletê.
Elî Xamineyî rêberê rejîma Îranê di 19`ê Rezber a sala 1391`an de gotibû ku hemwelatî nabe zarokên zêde hebin, lê niha dibêje ku ez wî hayamî şaş bûm, û ji xwedayê mezin daxwaz dikim, da ku ji ber vê şaşitiya ku min kiriye, min bibexşe.
Ev gotinên parêzgarê Elborzê di demekê de ne, ku bi sebeba dorpêçên aborî yên Amerîka û welatên din ên Rojavayî li ser Îranê, piranaiya karxane û kargehên pîşeyî û berhemanînê hatine daxistin, û hejmara hemwelatiyên betal û bêkar di Îranê de rojbiroj zêde dibin.
Serbarê rêkkvetina navikî a di navbera rejîma Îranê û welatên Rojavayî de, heyanî niha tu guherînek di rewşa aborî a Îranê de, di berjewendiya xelkê Îranê de nehatiye dîtin.

## Almaniyayê ji rejîma Îranê daxwaz kir da ku sizaya îdamkirinê bisekinîne



Konseya Mafê Mirovan a Almaniyayê, îdamkirina ciwanan di Îranê de şermeza kir, û ji vê rejîmê dawxaza sekinandina vê sizaya nemorivî kir.

Li gora rapora nûçegihaniya "REUTERS", "Bärel Kofler" komîsariyayê Mafê Mirovan a Almaniyayê, roja Çarşemî 11`ê Rêbendanê, derheqê îdamkirina hemwelatiyê bi navê "Elî Kazimî" ku di temenê 15 saliyê de rastî kuştina bizanebûn hatibû, ragehan ku dezgeha dadweriya rejîma Îranê sizaya îdamê bi ser de sepandibû.

Navbirî bi bê haydarbûna parêzerê wî hatiye dadgehkirin, û herwisa egera îdamkirina ciwanekî din yê bi navê "Hemîd Ehmedî" heye, ku ew jî bi kuştina bizanbûn di temenê zarokatiyê de hatiye girtin.
Îdamkirina "Elî Kazimî"yê temen 22 salî, dijkiryarên tund yên Saziya Lêborîna Navneteweyî li pey xwe hebûye.
Saziya Lêborîna Navneteweyî îdamkirina kesên ku, di temenê jêr 18 saliyê de, rastî kuştina bizanebûn tên, wekî binpêkirina mafê mirovan dizane.
Vê rêkxiravê di daxuyaneyekê de ragehandiye ku, îdamkirinên bi vî rengî, binpêkirina rasterast a konvansiyûnên saziyên navneteweyî ye, û eva jî di demekê de ye ku rejîma Îranê jî ev konvansiyûna wajo kiriye.

# Dengbêjê navdar Mehmûd Qizil çû ser dilovaniya xwe



**Dengbêjê navdar Mehmûd Qizilê ku di sala 1939an de li bajarokê Farqînê ji dayik bibû ji ber nasaxiya xwe ya dil di 79 saliya xwe de li bajarê Amedê çû ser dilovaniya xwe.**

Binevşa Narîn û Cembeliyê Mirê Hekkarî, Îbo Begê Pasînî, Ciwaniyê û Nazewicim bi dengê wî li çar aliyê cîhanê belav bû, Mehmûd Qizil ew kes bû ku di sala 1965 an de cara pêşîn plaka bi Kurdî derxistibu û herwiha di temenê xwe de bi 53 plakên Kurdî piştî Eyşe Şan û Huseynê Farê bi salan di dîwanxaneyên Bakurê Kurdistanê de dengbêjî kir.

Qizil evîndarekî bajarê Amedê bû; lê piştî şerê nav taxa Sûrê wî ji navenda bajêr koç kir û mala xwe bir gundê Çolaxan ê ser bajêr, dengbêjê navdar ev 3 sal bûn ku êdî nedikariya stranan bêje û li gundê Çolaxan bi zarok û neviyên xwe re wext derbas dikir.

Mehmûd Qizilê ku di sala 1939 an de li bajaroka Farqîna Amedê ji dayik bibû ji ber nasaxiya xwe ya dil li bajarê Amedê çû ser dilovaniya xwe. Koça Mehmûd Qizil di serî de li bajarê Amedê di nav hemû Kurdên cîhanê de xemgîneyeke mezin peyda kir.

Fîçerek Ligel Dengbêjê Navdar Mehmûd Qizil

Mehmûd Qizil ew kes e ku di salên 60î de plaka Kurdî a ewel wî çêkir,ew dem bi Kurdî fikînî jî qedexe bû; lê Mehmûd Qizil bi camêrî derket û got ezê bi zimanê dayika xwe bistirêm.

Mehmûd Qizil di salên borî de ji bilî stranbêjiyê mamostetiya hunerî jî dikir, ew dibêje ku Eyşe Şan berê bi Tirkî stranan digot, lê min rê li ber vekir da ku ew mêla xwe bide ser Kurdîyê.

Şexsiyetên navdar, buyerên civakî, neheqiyê ku li miletê Kurd dibûn ev hemû babetên Mehmûıd Qizil bû ku li ser wana strana çêdikir , ango Mehmûd Qizil ne tenê Stranbêjew di heman demê de rexnegirê Civakê bû.

Di jiyana xwe de Mehmûd Qizil, 174 plakan çêkir, lê stran û awazên ku wî dê civatan de çêkiriye û gotiye ew jî hejmara wan nizane her wisa bi dehan helbest û awazên wî hatine dizîn û li zimanê Tirkiyê hatiye wergerandin.

Mehmûd Qizil dîwana wî ji mêvanan vala nedibû, gundiyan xwe li dîwana wî digirt û guh didan şîret û tembîyên wî.

Mehmdûd Qizil dibêje ku dewra me bihurî, niha dor dora keç û xortan e, lê divê ku Kurd Hunermendên xwe yê kedkar jî ji bîr nekin.

Weke Mehmûd Qizil bi sedan Dengbêj û hunermendên di dewra xwe de navdar îro bi tenê ne û sebra xwe bi demên borî tînin nifşên nû gelek ji wana nas nakin û ev yek ji aliyê Civaknasan wek metirsiyeke têyî dîtin, ji ber ku doh çû îro dê here lê nifşên nû yên siba ne, wek Seydayê Ehmedê Xanî di Nubihara biçûkan de dibêje ûmîda me ji tefalan ku me emel betalan.
Rûdaw

# Şivan Perwer ji bo Efrînê stranek got



**Hunermendê Kurd ê navdar Şivan Perwer ji bo Efrînê straneke taybet got. Perwer di strana xwe de dibêje: “Haya dinyayê jê nîne, li welatê min bû şîn e.”**

Şivan Perwer di starana xwe ya ji bo Efrînê de bal dikşîne ser şer û karesatên ku di van demên dawî de têne ser Kurdistan û neteweya Kurd û dibêje: “Haya dinyayê nîne, dîsa li welatê min bû şîn e, piştî Kobanî û Kerkûkê vê carê li Efrîn e. Efrîn e xweş Efrîn e, Efrîn bi tenê nemîne.”

Strana Şivan Perwer di demekê de ye ku roja şemiyê (20-1-2018) artêşa Tirkiyê operasyoneke li dijî Efrînê da destpêkirin û navê “Operasyona Çiqlê Zeytûnê” lê kir.

Operasyona Tirkiyê di roja xwe ya heftem de ye û Serokomarê Tirkiyê tekezî li ser wê yekê dike ku operasyon heta dawiyê dê berdewam bibe.

# Xêro Ebas ‘Lo Welato’ kire klîp




**Hunermendê Kurd Xêro Ebas ji strana xwe ya bi navê “Lo Welato” re vîdyo klîp çêkir, ku têde behsa berxwedana gelê Kurd dike.**

Di vê vîdyo klîpa xwe de, Xêro Ebas behsa şerê ku tê ser Kurdistanê û berxwedana gelê Kurd li hemberî wan êrîşan dike.

Derketina vê klîpê di demekê de ye, ku ji 20 vê mehê ve Artêşa Tirkiyê û hêzên hevalbendên wê yên di nava refên Artêşa Azad a Sûriyê de êrîşî Efrînê kirine, ku di encama wan êrîşan de gelek kes bûne qurbanî.Dîmenên vîdyo klîpa Xêro Ebas li bajarê Zaxo yê Başûrê Kurdistanê hatine kişandin û Kamîran Bêrasî derhêneriya wê kiriye.
Têksta strana “Lo Welato” ji aliyê Hekîm Sefqan ve hatiye nivîsandin û muzîka wê jî ji aliyê Hakan Akay ve hatiye amadekirin.Rûdaw

# Zimanê Kurdî

**Qursên Kurdî, A. Karabax**

Mijar : Hoker
Nasîn :

a. Ew peyvên ku rengdêran, bi taybetî çalakiyan û ji aliyê erkî ve peyvên wek ên xwe; di hevokan de rêmanên wan xurt, kêm an bi sînor dikin re hoker(hevalkar) tên gotin. Ev peyv, çalakiyan; bi çawanî, bi dem, bi cih û bergeh, bi mêjer, bi şanîdan, bi daxwaz, bi guman, bi erêkirin, bi neyînî û bi pirsên xwe didin nasîn.

b. Ev peyv, bi bikaranînên xwe; ji aliyê wateyan ve di lêkeran, rengdêran û peyvên wekî yên xwe de guhartinan tînin holê.
c. Nav, rengdêr, lêker, daçek û hwd, wek hokeran bikar tên. Bi erkî dibin hoker lê her hoker; ne nav in, ne rengdêr in, ne lêker in û ne hwd in.

ç. Bi gelemperî peyvên ku di binyatên xwe de hoker in, ev ne guhêrbar in.

Destpêk
Pirs : Di vê tekstê de bilî yên hatine şanîkirin, hoker hîn hene?
Mînak : Ji tekstan : Her gava ku borîzanan dest pê dikir, digot ku ev sîstem nayê guhartin. Ev dinya nayê guhartin. Ev gêrîk û ev fîl nayên guhartin. Wan di piyêsên xwe de, di helbestên xwe de, di stranên xwe de, di roman û çîrokên xwe de, her ev tişt digotin. Gêrik gurê gêrîkan e. Ev dinya dinyaya derewîn e, dawiya wê tûnebûn
e. Wan digot ku ev dinya, ev dinyaya xerab, nemerd û qirêj ne hêjayî jiyanê ye.
Hewldanên ji bo guhartina vê dinyayê, ji ehmeqtiyê jî wêdetir, hewldaneke vala ye. Ma li vê dinyaya derewîn a ku tu tişt tê de nayê guhartin, hewldana ji bo guhartina wê, ne ehmeqtî ye, lê çi ye? Tu gêrîk nikare li vê dinyayê bextiyar be.

## Tiştonek



**A: Mahir Berwarî**

- Çûme çemî çe
qan, çeqel çeltukî çeqand.

- Çûme ser kêlî qebrî qemer e lor, palim da be kêlî qebrî qemer e lorr, aferîn qemer e lorr bo xot û kêlî qebrit qemer e lorr.

- Çûme malî reşey resmîşaxey, gutime jinî reşey reşmîşaxey, bimdê rêşme reşî espe reşî reşmîşaxey.

- Çûme çemekî çar sing im birrîn be carekî, dum kuta kayê, dum daye dayê.

- Çûme çûmekî be nîsk, lêy bû nêriyekî be tîsk, tîskim girt û helîhatmê, tîsk im berda û helîhatimê.

- Çûme dûlekî be pûş, tê da bû espêkî tûş, emin weşandim esp tûşandî.

- Çûme çûmekî terr, tê da bû gayekî lerr, yek şil e lerr, yek qul e lerr, ewan deyduwand şil e lerr, emin demxuwand singî terr.

- Xurî em ber terr e, le xurîkam merr e lerr birrawetewe.

Têdîtin: Amadekar destkariya devoka metelokan nekiriye

**Xwendevanên hêja!
Hûn dikarin bersiva tiştonekan bi riya E-Maila Agiri2003@gmal.com ji me re bişînin**

# Agirî

◆ Rojnameya “Agirî” di van malperên jêrên de bixwînin:
◆ www.Kurdistanmedia.com
◆ www.Agirimedia.org
◆ rojnamaagiri@gmail.com
◆ www.facebook.com/Agirikirmanji

Navnîşana derveyî welat: AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE E - Mail: Agiri2003@gmail.com Hejmar (319)

## Wêneyên merasima 2ê Rêbendanê di binkeyên PDKÎ de
















